# Bi baweriya bi nûbûna xebat û tekoşînê, newroz û sersala we ya nû pîroz be «... 3

Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de

AGIRÎ

Birêz Mistefa Hicrî

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî www.agirimedia.org Hejmar (226) 20-03-2014 Buha (150) Tûmen

# Divêt me baweri bi hêza xwe hebe

Êvariya roja 29'ê Reşemê (20.03.2014) di binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ de, rêûresmeke bi coş bi beşdariya sekreterê giştî, mêhvanan, endamên rêberî, kadr û pêşmerge û malbatên wan bi rêve çû.

Di yekemîn beşa vê rêûresmê de, rêzdar Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ peyamek pêşkêş kir. Piştre çend helbest û sirûdên taybet bi vê boneyê hatin pêşkêş kirin.

Beşa dawiyê ya rêûresmê jî, li derveyî hola rêûresman bi rêve çû, ku di vê beşê de, agirê newrozê ji aliyê rêzdar Mistefa Hicrî û nûnerekî Komeleya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê ve hate hilkirin. Piştre jî beşdaran bi coşeke taybetî ve, girtne govend û dîlanê û heya demeke dirêj ew şahî berdewam bû. Hêjayî basê ye ku deqa peyama newrozî ya birêz Mistefa Hicrî di rûpelên 3 û 4'ê de hatiye çap û bilavkirin.

## Sergotar

## Newroz



**Nahîd Husênî**

Demsala buharê ye, û newrozê himbêza xwe ji bo ciwanî û hezkirinê vekiriye. Newroz e û xwezayê bi kincên bi xeml ên Kurdî, xwe xemilandiye, da ku mizgîniya jiyanê bide gij û giya, û her jîndareke din. Dema jiyana xwezayê ye, û jiyamê dilê xwe bo hêviyan xweş kiriye. Serdema rabûnê ye, û Kurdistanê himbêza xwe vekiriye bona ku tîrojkên azadiyê himbêz bike. Bêhna azadiyê tê, û rêvîngên têhniyê serbestiyê pêngavên xwe bileztir dikin, bi vê hêviyê ku kena li ser lêvên wan tevlî tîrêjan bin, û di dema serkevtina yekcarî de, hevdu himbêz bikin.

Newroz e, lê welatê buhar û newrozê û hêviyên di dil de, li jêr dûmana reş a dîktatoriyê de dinalîne. Destpêka vejînê ye, û di kangeha jiyanê de, mirin çavnihêriya gellek ji hêviyan dike.

Dema vegeşîna xwezayê ye, lê dûmana dîktatoriyê per û baskên xwe bi ser zozanên herî bi xeml ên nîştiman de kêşaye. Xwezayê himbêza xwe ji bo vegeşîneke nû amade kiriye, lê kerb û kîna kevneperestiyê bi hilma pirr ji jehrê a xwe hewil dide ku per û baskên xwe bi ser hemû Kurdistanê de bikêşe.

Rejîma dijî kêfxweşî û azadiyê, di Îranê de , evsal jî wekî her salê hewil dide ku pêşiya şahî û kêfxweşiyan bigre, jiber ku şahî û kêfxweşî nîşaneya dijayetiya di gel çanda reş û reşperestiyê ya Komara Îslamiya Îranê ye. jiber ku kêfxweşî, hêvîdarbûn e bi rojên piştî Komara Îslamiya Îranê.

Lê newroz her newroz e, û nasnameya kurdewariyê ye. Newroz nîşana dijberiya di gel Komara Îslamiya Îranê ye, û wê her bimîne. Newroza we pîroz, dilê we tejî ji hêvî, hêviyên we nêzîktir bi armancên we, û arancên we bidestve bên.



# Peyama Deftera Siyasî ya PDKÎ bi boneya 8'ê Mars

Deftera Siyasî ya PDKÎ, bi boneya 8'ê Mars roja cîhaniya jinan, peyamek bilav kir, ku deqa peyamê bi vî awayî ye:
Îro carek din, em pêşwaziya ji roja dîrokî ya 8'ê Marsê dikin, ku wekî roja navneteweyî ya jinan hatiye ragehandin û rêz jê tê girtin.

PDKÎ tevî rêzgirtina ji roja hevpeywendiya di gel jinan, pîrozbahiyên herî germ ên xwe pêşkêşî tewahiya jinên cîhan, Îran û Kurdistanê dike. Bi vê hêviyê ku jinên tekoşer ji hewl û xebata xwe ya pîroz li dijî serberedayî, kevneperestî û çewsandinê, û herwisa bo gihîştina bi mafên xwe ên rewa serkevtî bin.

Jin bi tekoşîna bê rawestiyan û pirr ji qurbanî ya xwe, di komek ji welatên cîhanî de deskevtên buhagiran bi dest ve anîne, û bi beşeke berçav ji azadî û mafên xwe gihîştine.

Lê piştî derbazbûna sedsalekê bi ser ragehandina roja cîhaniya jin, niha jî di piraniya welatên cîhanê de, jin bi şêweyên curbicur dibin qurbaniyê ferq û cudahîdanînan û bîrûbaweriyên kevneperestane, û di bêpariyê de dijîn.

Yek ji wan welatên ku mafên siyasî, aborî û civakî ên jinan tê de bi eşkere tê binpêkirin, û jin bi sedema kultura ferq û cudahîdanîn û paşvemayî ya hikûmetî, ji mafên xwezayî û mirovî ên xwe bê par in, Îrana li jêr deshilata Komara Îslamî de ye.

Di Îrana Îslamî de, çewsandina jinan di civakê de, yasayî ye, rê pê hatiye dan. Herwisa ferq û cudahiya hemû aliyane, maf binpêkirin û sivikatîkirina bi jinan, li gorî yasaya bingehîn a welat asayî ye, û hatiye yasayîkirin. Di çand û eqliyeta karbidestên rejîma Îslamî de, jinên Îranê bi giştî wekî mirovê pile du, têne hesibandin û her bi vî rengî jî reftar bi wan re tê kirin.

Ji bilî vê yekê jinên Kurd, di jêr barê giran yê sitema neteweyî de jî diçewsin, û têne serkutkirin. Rejîma azadîkuj ya Îranê ji vê yekê agehdar e ku jinên Kurdistanê bi dirêjahiya tevgera rizgarîxwaziya Kurd, di xebata bo bidestveanîna azadiya neteweya xwe de, beşdar bûn, û niha jî beşdar in.

Jinên Kurd selimandine ku tekoşîna ji bo azadiyê, û rizgariya wan ji çewsandin û bê pariyê, wek beşeke cudanekirî ji xebata gelê wan bo azadî û bidestveanîna mafên siyasî û neteweyî ên wan e.

Lewra di nava refa partiyên siyasî ên Kurd de, rêxxirawên ne hikûmî, ji her derfetekê ku dest wan bikeve, mil bi milê mêrên Kurd, fedakariyê dikin, û canê xwe gorî dikin.

PDKÎ ew şanaziya ji xwe re bi dest xistiye, ku her ji dema avabûnê ve, pirsa jinan jêre giring bûye, û xebata bo bidestveanîna mafê wekhev ji bo jinên Kurd, di programa xwe ya siyasî de bi cih kiriye.

Lê PDKÎ di heman demê de, ew rastiya li ber çavan bûye ku heya niha, eva ku di vê derheqê de hatiye kirin, bes nine, û dibe hewlên zêdetir û bi bernametir bo beşdariya berfirehtir ya jinan di jiyana siyasî û civakî de bihê dan. Jiber ku li ser vê baweriyê ye ku xebata bo azadiya neteweyekê, bi bê beşdariya jinan û bidestveanîna madên wan, xebateke ne tewaw e, û nagihîje encama dilxwaz.

Diyar e ku jinên Kurd bi mifahwergirtina ji ezmûna jinên xebatkar ên neteweyên rizgarbûyî, ew rastiya li pêş çavên wan e, ku gihîştina bi azadî û serbestî û rizgariya ji çewsandinê, bi hewl û tekoşîna bêrawestan û berdewam ya jinan bixwe ve bidestve tê.

Lê serbarê vê rastiyê erka li ser milên mêrên wekhevîxwaz û demokrat e ku di vî warî de alîkarê jinan bin.

Di vê xebata dijwar û berheq û rewa de, PDKÎ xwe wekî alîkarê jinan dizane, û ji xebata wan ya rewa bo gihîştina bi wekhevî û rizgarbûna ji ferq û cudahiyê, piştevaniyê dike.

Serkeve xebata jinan bo azadî û wekheviyê
Pîroz be 8'ê Mars roja hevpêywendiya di gel jinan

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**07.03.2014**
**16.12.1392**

# Peyama newrozî ya birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ

**Hemwelatiyên birêz!**
**Xelkê azadîxwaz ê Kurdistanê!**
**Amadebûyiyên hêja!**

Bi boneya newrozê û serê sala nû, ez pîrozbahiya herî germ a PDKÎ pêşkeşî we dikim.

Ez hêvîdar im ku sala 1393'an (buhara 2014) ji bo we wekî buhara bi xeml, pirr be ji



ezîzên xwe, bê par ji ciwaniya buharê û xweşiya rojên cejnê, di gel zîndanevan û îşkencekerên dilrş, neçar in ku di girtîgehan de bimînin, morala we bilind, û dilê we tejî ji hêviya rizgariyê be. Pîroz be li kadr û pêşkevtin, û pirr be ji şadî û kêfxweşî, jiyan bi dilê we be, û dijminên we serşor, û rû li nemanê bin.

Bila ji vê derfeta pîroz em mifayê wergirin û em hemû pêkve silav û pîrozbahiyên xwe bişînin bo malbatên şehîdên serbilind û hertim zindî, ên riya rizgariya welatê xwe, ên ku li dijî paşvemayîn û zulm û sitemê bûn, ên ku her tim di bîra me de ne, û riya wan heya gihîştina bi armancên wan berdewam e.

Newroz li we pîroz be, xortên çavnetirs û berxwedêr ên gel, ên di nava girtîgehên tarî ên rejîma nezanî û sêdarê de, ên ku bi tawana mafxwaziyê di van rojên cejnê, dûr ji himbêza germ û pirr ji hezkirinê ya malbat û pêşmerge û endamên PDKÎ, û hemû tekoşerên hişyar ên ku di navxwe ya welat û li jêr metirsî û gefxwarinên rejîmê de, ji her cure derfetekê mifayê distînin da ku bi awayekî kêrhatî, li dijî rejîmê berberekaniyê bikin, û amade bin ku di pêxema azadiyê de nirxa wê bidin.

**Hêjano!**

Niha ku em bi hêviyeke nû ber bi pêşwaziya ji sala nû ve diçin, di cihê xwe de ye ku em avriyekê li yek sala borî, wate sala 1392'an a Rojî bidin, saleke dijwar û pirr ji êş û azar, wekî hemû heyama temenê rejîma Îranê, bo hemû xelkê Îranê, û bi taybetî bo neteweya Kurd di vî welatî de.




Di vê derheqê de hekî em bixwazin ku avriyê bidin hemû bûyerên wê salê, bixwe hewcedarê demekî taybetî ye, û di vê peyamê de cih nagre, lewra bi kurtî ezê îşareyê bi çend xalan bikim:

- Li gorî nirxandina sindûqa navneteweyî ya pere, rêjeya bêkariyê li Îranê, di sala borî de, li jêhelçûnê de bûye. Her li gorî serjimêriyên rejîma Îranê bixwe, ew rêjeya di Kurdistana Îranê de, li çav herêmên din ên Îranê, sertir bûye.

Li gorî serjimêriyên nefermî, û heya ên rejîmê bixwe, ku ciyê gumanê ne jî, pêketina bi madeyên sirker zêde û zêdetir bûye.

Li gorî gotina wezîrê karûbarên navxwe, şeş milyon Îranî bi awayê rasterast, pêketiyê madeyên sirker bûne, û %92 ji xelkê Îranê nîgeranê vê diyardeyê ne. Berpirsyarê "Civata Hemahengiya Berbirûbûna di gel Madên Sirker" li parêzgeha Sine dibêje ku nêzî 20 hezar pêketiyên van madeyan di vê parêzgehê de hene.

-Giranî û helawsana (Enfilasiyona) aborî û pêketina bi madeyên sirker, diyardeyên nexweş ên civakî ên zêdetir li pey xwe anîne, û hejmar û serjimêriya xwekujî û telaqê rû li zêdebûnê ye.

Li gorî serjimêriya nawenda pizîşkên warê karûbarên yasayî, (pizişk qanûnî) li Kirmaşanê, heya dawiya meha Sermawezê, 3.125 kiryarên xwekujiyê di wê parêzgehê de rû dane ku li çav sala borî, ji sedî deh zêdetir nîşan dide.

Nawenda kodikê (sebt ehwal) ya vê parêzgehê ragehandiye ku di destpêka şeş mehên destpêka wê salê de, radeya telaqê %13.3 zêde bûye, û li hemberî her çar zewacan de, sê telaq hatine navnivîskirin.

- Di sala borî de, karnameya rejîma Îranê di berdewamiya tundûtîjî û serkut û binpêkirina mafên mirovan de, reştir ji caran bûye.

- Mijareke din ya balkêş ku di heman demê de wekî ezmûnekê cihê jê fêrbûnê ye, cihguherîna berpirsyarên rejîmê di navbera Ehmedînijad û Rûhanî de, wekî serkomarê welat bû.

Di vê şanogeriyê de, ku rejîmê wekî hemû carên din bi rê êxist, Rûhanî bi gotareke cuda ji Ehmedînijad, û bi qewl û soza cîbicîkirina daxwaziyên destpêkî ên xelkê karî ku bala beşdarên hilbijartinê bo aliyê xwe rakêşe.

- Diyarîkirina Rûhanî di encama vê bi nav hilbijartinê de, xweşî û hêviyeke wisa di nav beşeke xelkê de pêk anî, wekî vê ku ezmûna qewlên berbijarên hilbijartinên pêşîn, û çarenûsa wan qewl û sozan, ji bîr kiribin, û jêve bin ku di rastî de Rûhanî baw-




erî bi wan sozan heye û dikare wekî serkomar wan qewl û sozên xwe cîbicî bike. Ji qewl û sozên wî em dikarin amajê bi wan çend xalên jêrîn bikin:

Vêdebirina rewşa emniyetî (tenahiyê) bi ser welat, azadkirina girtiyên siyasî bi Kerobî û Mosewî ve jî, birêvebirina yasaya bingehîn, serxwebûna dezgeha dadweriyê, azadiya raderbirînê, xwendina bi zimanê zikmakî di wan herêmên ku neteweyên xeyrî Fars lê dijîn, diyarîkirina berpirsyarên wan herêman ji kesên xwecî û heta soza diyarîkirina wezîrekî ji hindikayiyan bi armanca pêregihîştina bi kêşeyên wan.

Hinek kes jî -her yek ji wan bi mebestekê ve- li ser wan qewl û sozan ketin nava propagendeyan bo Rûhanî û ew qasê ku karîn di rastaya serkevtina Rûhanî, û axkirina di nav çavên xelkê de, xemsarî nekirin, lê Rûhanî her ji dema ku hate ser kar, ne tenê sozên xwe ji bîr kirin û pişt guh ve avêtin, belkû rast berevajî kar kir, ku ew jî vedigere ser du sedemên serekî:

Yekem- Rûhanî ku di heyama hatine ser deshilata Komara Îslamiya Îranê ve, ji mohreyên evlehî ên rejîmê bûye, û emegdariya xwe bi vê rejîmê û weliyê feqîh selimandiye, her di bingeh de bawerî bi pêkhatina guhertinan di Komara Îslamiya Îranê de nine.

Duyem- Di Komara Îslamiya Îranê de eva serkomar nine ku deshilat hebe, belkû tenê weliyê feqîh deshilata diyarîkirina siyaset û programa karê derve û navxweyî heye, her wek ku Xatemî di dema xwe de got, di vê sîstemê de, serkomar ji pêlîstokekê zêdetir nine. Di rêûresma nasandina parêzgarê nû, û birêkirina parêzgarê pêşîn ê Sinê de, wezîrê Karûbarên Navxweyî yê dewleta Rûhanî bo sivikatîkirina bi gelê Kurd ragehand ku wî gellek hez dikir ku kesek ji xelkê xwecî bo vê berpirsayetiyê diyarî bike, lê mixabin kesekî kêrhatî di nava Kurdan de nedît, ku soza xwendina bi zimanê dayîkê, bi ragehandina dijberiya nawenda Ferhengistana Ziman û Edebiyata Farsî hate jibîrkirin, û di cihê diyarîkirina wezîrekê bo karûbarên hindikayiyan di navxwe de, Elî Yonisî berpirsê pêşîn ê dezgeha Îtilaatê, wek rawêjkarê taybetî yê serkomar di vî warî de hate diyarîkirin.

Derheq azadiya raderbirînê, daxistina çend rojname û destbiserkirina çend tekoşerên cudahizir di vê heyamê de, encama beşeke din ji qewl û sozên Rûhanî bûye.

Cihê baldanê ye ku azadiya bîrûrayan di vê heyamê de, bi awayekî ketiye metirsiyê de, ku serkomar dibêje: “Yên ku rexnegir û li dijî dewletê ne, azad in, lê îznê bidin her di vê astê de jî, hevalên dewletê ji azadî û tenahiyê bê par nemînin, û rexneyên avaker bigrin”.

**Hevalên rêzdar!**

Tewahiya wan sitemkariyan ji dest dewletê tê, û birêvebirina vê siyasetê di navxwe ya welat de, ne tiştekî nû ye, belkû her di bingeh de rejîm li ser bingeha vê şêweya siyaset û bîrkirinê hatiye avakirin, û ji sîstemeke bi vî awayî, ji vê zêdetir nahê çavrêkirin.

Lê ya ku cihê çavnihêriyê nine, hêvîdarbûna bi vê rejîmê û bi taybetî ji aliyê komeke hemwelatiyên Kurd ve ye, ku bi bê bibîranîna qewl û sozên di bi nav hilbijartinên pêşîn de, bi derev û xapandinên xwe, ku di vê rejîmê de rewayiya olî pê hatiye dan, carek din dikevne jêr bandora hinek qewl û sozan û diçne ser sindûqên dengdanê, û dengê xwe didin wan.

**Rêzdarno!**

Rejîma Komara Îslamiya Îranê serbarê pesnkirina xwe, û nîşandana rûçikek bihêz ji xwe, ji her demê bêhêztir e, jiber ku bihêzbûna hikûmetê ne bi hejmara zaf ya hêzên serkutker ên wê, û çewsandina xelkê bê tawan e, belkû bi qasî qahîmbûna pêgeha civakî û baweriya xelkê wê ye.

Niha kêmtirîn hejmara xelkê baweriyê bi vê rejîmê û reformên wê dikin. Xelk wekî dagîrker li vê rejîmê dinihêrin û li pey derfetên herî biçûk de ne ku hikûmetê di nav lepên dagîrker de derxînin û radestî nûnerên rastîn ê gelan bikin.

Deshilatdarên rejîmê jî gellek baş ji vê rastiyê tê gihîştine, lewra tu derfetek bo azadiya bîrûrayan û cudabîran pêk nahînin.

Rejîmek ku pişta xwe bi xelkê xwe qahîm be, tirs ji rexneyên rojnamenûsek, û daxwazkariya mafxwazekî neteweyî û heya xwendina bi zimanê dayîkê nine, û bi van tawanan wî xelkî nagre û îdam nake.

Rejîmek ku hezkirina xelkê bi hêz û şiyana xwe bihesibîne, li hemberî daxwaziya welatên din de, bi hêceta “Nermişê Qehremanane” (nermiya qehremanane) serî natewîne, û ew qas zelûl û bêçare nabe.

–her çend ku em li ser vê baweriyê bûn û hene, ku projeya navikî ya Îranê bi armanca destpêregihîştina rejîmê bi çeka navikî her di roja yekemîn de siyaseteke serberedayiyane û şaş bûye, û heta zêdetir dest ji vê xewn û xeyala tevdanîkarane hilbigre, zêdetir bi qazanca xelkê Îranê ye-.

Xeyrî lawazî û bêçareyiya rejîmê bi giştî, serdema deshilatdariya wan şêwe deshilatan bi ser çûye, jiber ku şiyana guhertinan û xwe rastkirina di gel pêvajoya serdem nînin, lewra herwekî hemû wan şêwe hikûmetên ku ji dûr û nêzîk ve, em dibînin, mehkûm bi nemanê ne. Lewra dema vê hatiye ku hemû aliyek bi awayekî hevgirtî li dijî wê bisekinin û ji vê zêdetir bi direv û fêlên wan nehên xapandin.

Erkek ku di vê rastyaê de dikeve ser milê hemû takên civakê, eva ye ku aliyê kêm alîkariya serkevtina find û fêlên wan nekin.

Baweriyê bi hêz û şiayana xwe ya bê binî bînin, her wekî hemû xelkê ku di heyama 4-5 salên borî de, bi destê betal berbûne canê deshilatên sitemkar û serkvetî jî bûn.

Bila bi vê hêviyê ve, em hemû ber bi pêşwaziya ji sala nû ve herin û agirê newrozê û xweşî û govendên vê boneya pîroz bikne hêvina têhn û goriya xwe ya xebatkarane, û cemeda tarîtî û sir û seqema stem û paşvemayînê ya rejîmê bidin helandin.

Bi baweriya bi nûbûna xebat û tekoşînê, newroz û sersala we ya nû pîroz be, û saleke pirr ji şadî û cejn û serkevtin û nemana sitem û stemkariyê, ji we re hêvî dikim.

**PDKÎ**
**Sekreterê giştî**

# Nerîna Lîderan



Nêçîrvan Barzanî:

"Em piştgiriya aştiyeke berdewam di Turkiyê de dikin".



Enwer Muslim:

"Xwebirêvebirî mafê rewa yê Kurdan e, û armanca me parvekirina Sûriyê nine".



Elî Seîdî:

"Xelkê welat dibe xwe ji bo êş û zehmetiyan amade bikin".



Ehmed Şehîd:

"Dema berpirsyarên rejîmê weha êrîşî ser me dikin, bizanin ku bi xelkê xwe re çawa reftarê dikin".

# Helebçe xala hevpar a hevxemiya neteweyî



Çeko Ehmedî

26 sal bi ser karesta mirovî ya serdem, wate şehîdkirina pênc hezar kesî û bi hezaran birîndarî, ku mirov dikare destewajeya "Şehîdkirina Helebçeyê" jêre bi kar bîne, derbas dibe.

Her niha jî birîna wê karesatê, wekî rojên yekemîn bi êş û jan e, û hemû salekê bona çareseriya beşek ji vê birînê, li seranserê cîhanê ji aliyê Kurdan ve civîn û rêûresm birêve diçin, û her carê aliyek ji xesarên wê tênê nîqaşkirin.

Yek ji biyavên herî giring ên vê karesatê ku bandora kûr ya nigatîv li ser derûna takên Kurd di hemû parên Kurdistanê de danî, û bê guman renge piştî yek yan çend nivşên din ji takên Kurd, hemû aliyeke vê pîlanê ku dest û rola gelek welatan têde bû, eşkere be, lê ya ku niha eşkere bûye, hebûna destê du welatên dagîrker û dîktator û bêrehm ên dijî Kurd di vê karesatê de ye.

Îraqê rasterast çeka kîmyavî bo qirkirina pênc hezar mirov û bi hezar mirovên din bi kar anî, û belge di dest de hene ku rejîma Îranê berî encamdana vê karesatê agehdar bûye.

Em dikarin qala çend xalan bo selmandina vê îdiaya xwe bikin. Di hemû wan cinayetan de ku rû dan, serbarê hebûna hêzên rejîma Îranê di wan herêman de, heya niha jî tu basek ji birîndar ya kuştina hêzên vê rejîmê di vê karesatê de nehatiye kirin, û cihê heyrîmanê ye ku hevdem di gel şehîdkirina Helebçeyê, hêzên komara Îslamiya Îranê hemû alav û hewcehiyên veguhastina birîndaran ber bi Îranê û propagendekirina bi vî karî di ber destên wan de hebû, û xwe wekî mirovdost û bi rehm li hemberî gelê Kurd de nîşan didan, û mixabin beşeke berçav ji civaka cîhanê jî, bawerî bi vê yekê kirin.

Di yekem dema rûdana vê jînosaydê li hemberî gelê Kurd de, kamêravanên rejîma Îranê ku weha dixuye ku kesên şareza di biyavê çêkirina fîlman de bin, pêştir bo bûyereke bi vî rengî, xwe amade kiribin, û çavnihêrê vê bûyerê û fîlmhilgirtina ji vê bûyerê bibin.

Ew fîlmên ku ji ragehandinên giştî ên rejîma Îranê ve bilav bûn, her hemû şarezabûna wan di çêkirina fîlaman de nîşan didin, ku renge berî çêkirina wan, sînaryoya wan hatibe nivîsandin.

Ya ku rû da, karesatek rastîn û jînosayd bû, û berhema kiryara rejîmeke dijî mirov bû, û encama xweragirî û azadîxwaziya neteweyeke belengaz bû, û nîşanderê sat û sewdaya navdewletî û zalbûna berjewendiya aborî û pêwendiyên navdewletî bi ser hemû mafên mirovan û canê mirovan de bû. Para herî zaf ya welatên cîhanê, bo şermezarkirina vê tawana dijî mirovî, di yekemîn dem û rojan de, xwe mat û kerr kirin, û bi parêz ve amaje pê kirin.

Lê li hember de, xwîşk û birayên xelkê Helebçeyê li aliyê din ê sînorê welat, di Kurdistana Îranê de, serbarê hemû xemsariya mezinhêzên cîhanê, di hemberî vê karesatê de, bi dilekî vekirî û himbêzek germ, wekî carên pêştir, û heta piştre jî, bûne piştevan û xemxorê xelkê Kurdistana başûr, û niha jî yad û bîranîna wan şehîdan ji aliyê xelkê Kurdistana Îranê ve bilind dinirxînin, û rêz jê digrin, û hewce ye ku di hemû parên Kurdistanê de, wekhev hevxema karestatên hevdu bin, û yekneteweyî, yek kulturî, û xwe bi şirîkê hevduzanînê di dema karesatan de, di dil û derûna hemû takên Kurd de, reng bide.





Îdrîs Sitwet












# Panorama sala1392'an (21'ê Adara 2013-20'ê Adara 2014)

**12.04.2013 (23.01.1392)**
**Komîteya Kurd, di «SI» de hate avakirin**

Li roja 12'ê Nîsana 2013'an li gor biryara dawî kongireya Înternasyonala Sosyalîst (SI), û bi amadebûna 24 partî û rêkxirawên herçar parçê Kurdistanê, konfransek bi armanca avakirina komîteyek Kurdî di vê rêkxirawê de, li bajarê Silêmaniyê birêve çû. Heyetek payebilin ya PDK Îranê bi serperestiya rêzdar Hesen Şerefî di vê konferansê de beşdarî kir. Hêjayî basê ye ku ew konferans bi amadebûna rêzdar Lûyîs Ayala sekreterê "SI" dest pê kir.

**21.03. 2013 (31.02.1392)**
**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û Komeleya Şoreşgêr a Zehmetkêşên Kurdistana Îranê, di daxuyaniyeke hevpar de hilbijartinên dewra 11'ê ya serkomariyê Baykot kirin.**

Di dema nêzîkbûna birêveçûna yazdehemîn dewra hilbijartinên serkomariyê di Îranê de, PDKÎ û Komeleya Şoreşgêr a Zehmetkêşên Kurdistana Îranê di daxuyaniyeke hevpar de tehrîmkirina hilbijartinên dewra 11'ê ya serkomariyê ku biryar bû li 24'ê Cozerdanê birêve biçe, Baykotkirin. 31'ê Banemer wezareta navxweyî ya rejîm bi bilavkirina daxuyaniyekê navên 8 kes ji berbijêrên hilbijartina serkomariyê eşkere kir.

**05.06 2013 (15.03.1392)**
**Parlemênta Kanada biryarek dîrokî da**

Roja 5'ê Hezîrana 2013'an, di 25'mîn salvegera komkujiya girtiyên siyasî ên sala 1367'an(1988) li Îranê, parlemênta welatê Kanadayê weke yekemîn welat li ser astê cîhanê, di biryarek cesûrane de, gelaleya komkujiya girtiyên siyasî ên sala 67'an (1988) ku ji aliyê "Kempêna komkujiya 1988'ê" ve hatibû amadekirin, li gor yasa û pîvanên navnetewî weke cînayet li dijî mirovahiyê bi fermî naskir û piştre, roja 1'ê Çileya pêşîn bi armanca hevderdî û hevxemî tevî malbatên kuştiyên vê cînayetê, weke roja hevpêwendî digel girtiyên siyasî di Îranê de diyarî kir.

**14 .06.2013 (24.03.1392)**
**Hilbijartina serkomariyê di Îranê de birêve çû**

Roja 24ê Cozerdana 1392 a rojî Hilbijartina dewra yazdehem a serkomariyê li bin dethilata wîlayeta feqîh di Îranê de birêve çû, û di encam de roja 25'ê Cozerdanê, wezîrê navxwe yê Îranê ragehand ku Hesen Rohanî karî wek serkomar piraniya dengan bi dest bîne.

**03.07.2013 (01.04.1392)**
**Artêşa Misrê Mihemed Morsî li ser kar avêt**

Roja çarşemî Artêşa Misrê Mihemed Morsî li serkomariyê avêt. Biryara han piştî xwenîşandanên sedan hezar kesî ku dijberên Mihemed Morsî bûn hat cîbicîkirin. Ebdulfetah El-sîsî Fermandeyê giştî ê hêzên çekdar ên Mîsrê, di daxuyaniyekê de helwêsta arteşê ragehand û eşkere kir ku serokê Dadgeha Bilind a Yasaya Bingehîn Adil Mensûr, heya birêveçûna hilbijartina serkomariyê, wê birêveberiya welatê Mîsrê bigire stûyê xwe.

**22.07.2013 (31.04.1392)**
**Civîneke berfireh bi armance pêkanîna Kongireya Neteweyî pêk hat**

Roja 31'ê Pûşper (22.07.2013) kombûneke berfireh bi serperestiya rêzdar Mes'ud Barzanî serokê herêma Kurdistanê û bi beşdariya Partiyên her çar beşên kurdistanê bi merema pêkanîna Kongireya Neteweyî ya Kurd li Herêma Kurdistanê pêk hat, û şanda PDKÎ bi serperestiya rêzdar Mistefa Hicrî sekretêrê giştî yê PDKÎ di vê kombûnê de beşdar bû. Di vê civînê de heyetek 21 kesî wek Desteya Amadekar a Kongireya Netewî pêk hat. Nûnerê PDKÎ wekî yek ji endamên 21 kesî yê Desteya Amadekar a Kongireya Neteweyî hat diyarîkirin.

**04.08.2013 (13.05.1392)**
**Helbestvanê navdarê Kurd Şêrko Bêkes di temenê 73 saliyê di Swîdê de, koça dawiyê kir**

Roja 04.08.2013'an Şêrko Bêkes helbestvanê navdar ê Kurd di yek ji nexweşxaneyên Swîdê de bi sedema nesaxiya pençeşêrê koça dawiyê kir. Şêrko Bêkes kurê helbestvanê Kurd Fayiq Bêkes e, û di sala 1940'î li bajarê Silêmaniyê ji dayîk bûye, û di sala 1986'an de çûye derveyî welat, û ji sala 1987 heya 1992'an li Swîdê jiyan kiriye û piştre vegeriyaye Kurdistanê. Navbirî bi yek ji helbestvanên nûxwaz ê hevçerx ê Kurd tê hesibandin ku xwediyê çendîn dîwanên helbestan e, û gellek ji helbestên wî bo ser çendîn zimanên zindî ên cîhanê hatine wergêrandin.

**08.09.2013 (13.05.1392)**
**Muhendis Riza Xeyatî koça dawiyê kir**

Roja 08.09.2013 (13.05.1392) Muhendis Riza Xeyatî pêşmerê kevnar ê PDKÎ di bûyera dilêş ya trombîlê de, cane xwe ji dest da.Termê Muhendis Riza Xeyatî di goristana şehîdan ya PDKÎ de bi axa pîroz ya nîştiman hate sipartin.

**05.12. 2013 (14.09.1392)**
**Nîlson Mandêla koça dawî kir**

Roja 05.12. 2013'an Cêkob zûma serkomarê Afirîqaya Başûr bi awayekî fermî koça dawiya Nîlson Mandêla ragehand. Nîlson Mandêla têkoşerê siyasî û xebatkarê naskirî yê dijî apartaydê li Afrîqaya Başûr û rêberê Kongireya Neteweyî ya Afrîqayê, roja 14.09.1392'an (05.12.2013) piştî heyamekê nexweşiyê di temenê 95 saliyê de koça dawiyê kir. Bi nemana Nîlson Mandêla azadîxwazên cîhanê û alîgirên wekheviyê, semboleke xebat û tekoşînê û kesayetiyekî herî naskirî yê demokrasîxwaziyê ji dest dan. Deftera Siyasî ya PDKÎ jî bi boneya koça dawiyê ya Nîlson Mandêla ragehandinek bilav kir.

**(20.11.2014) 29.08.1392**
**Îran û welatên 5+1 li hev kirin.**

Piştî çend sal çavnihêriyan, gera nû ya gotûbêjan di navbera Îran û welatên 5+1, li ser pirsa navikî ya komara Îslamiya Îranê li bajarê Viyen paytextê Nemsayê dest pê kir, û bi vî awayî li hevkirin. Li gorî vê lihevkirinê, diviya Îran pirograma xwe ya navikî sînordar bike, da ku rojava di hember de, beşek ji gemaroyên xwe ên aborî li ser Îranê hilgire.

**28.02.2014 (09.12.1392)**
**Kongireya navnetewî ya Lawên Sosyal Demokrat "IUSY" birêvr çû**

Di vê kongireyê de li ser pêşniyara nûnerê Yekîtiya Lawên Demokrata Kurdistana Îran, di rapora taybet bi netewên cîhanê de, xalek li ser piştevanî ji mafên neteweya Kurd li her çar beşên Kurdistanê hate pejirandin. Herweha di beşek din a karê kongirê de Evîn Încir weke sekretera giştî a IUSY û herweha Aştî Azerefşan nûnera Yekîtiya Lawên Demokrat a Kurdistana Îranê weke endama Desteya Çavedêr a IUSY hatin hilbijartin.

# Bandora herêma Kurdistana Îraqê, û helwesta welatên cîran



Şemal Terxîbî



Herêma Kurdistana Îraqê wekî tenê parçeya rizgarkirî ya Kurdistanê, bi sedema hilkewta coxrafiyayî û hebûna jêrxana bihêz ya aborî, xwediyê pêgeheke taybetî di asta herêmî de ye, û di heman demê de jî, giringî û hestyariyeke taybet bi xwe di nava welatên herêmê de heye.

Ya ku eşkere ye herêma Kurdistana Îraqê hevsînor e di gel sê welatên Îran, Turkiye û Sûriye ku di wan sê welatan de, nifûseke berçav ji Kurdan akincî ne.

Di heman demê de jî mijûlî xebat bo bidestveanîna mafên xwe yên neteweyî ên zewtkirî ne.

Ji vê dîtingehê ve Kurdistana Îraqê dikare roleke bi bandor li ser pêvajoya xebata parçeyên din ên Kurdistanê danê. Bi vê sedemê, em dibînin ku rejîmên zal bi ser her sê parçeyên din de, ji du riyan ve hewil didin ku vê rastiyê ji riya xwe derxînin:

Ya yekem, hewldan bona vê ku ji riya destêwerdana di nava karûbarên siyasî û aborî yên vê herêmê de, Hikûmeta Herêma Kurdistanê bikin hikûmetekî kedîkirî di destên xwe de, û ya duyê, hewldan bona kêmreng û kalkirina pîlanên xwe.

Yek ji bingehên aboriya herêma kurdistanê hebûna cihên torîstî û geştiyarî ên vê herêmê ye, ku di çend salên borî de kariye ku wekî karteke bihêz ya aborî û dahathîner xwe nîşan bide.

Bi sedema hebûna azadî û aramî û di heman demê de jî, xwezaya dilrevîn û şûnwarên dîrokî, herêma Kurdistana kariye ku dîmeneke ciwan û balkêş ji xwe, bide bîrûraya giştî, û pêgeheke bihêz di vî warî de, ji xwe re bibîne.

Bi awayekî ku em dikarin bêjin ku hevçax di gel kerta petrol û gaz û samanên din ên xwazayî, kanaleke baş û bi cî bo vejiyandina aboriya xwe desteber bike, lê her wekî me îşare pê kir, neyar û dijminên gelê Kurd, tu carî çavên wan bi pêşkevtinên herêma Kurdistanê venabe, û berevajî berdewam hewlê bo kêmgiring nîşandana van deskevtan didin.

Serkonsolgeriya rejîma Îranê li bajarê silêmaniyê çend rojan berî niha di daxuyaniyekê de, bi xelkê Îranê ragehandibû ku neçin Kurdistana Îraqê, jiber ku biyavê tenahiya vê herêmê ne baş e.

Herçend piştî nerizayetiya berpirsyarên herêmê navbirî ragehand ku merema wan ew yek nebûye. Lê naweroka vê axavtinê vê dijayetiya eşkere zêdetir derdixe.

Di vir de pirs ew e ku nehatina torîstan ji Îranê ve bo herêma Kurdistanê, çi qazancekê digehîne rejîma Tehranê.

Em dikarin bersiva vê pirsê di çend beşande bidin:
Yekem: Her wekî hemû aliyek agehdar in, hikûmeta nawendî ya Îraqê bi yek ji hevalbendên stratejîk ên Îranê di vê herêmê de tê hesibandin.

Herwisa di vê heyamê de komek kêşe di navbera Bexda û Herêmê de pêk hatine, û hikûmeta nawendî bi neşandina budce û pere, wekî karteke zext û givaşê dixwaze ku hikûmeta Herêmê bixe qedeman, di vî warî de hewlên Komara Îslamiya Îranê derheq rêgirîkirina ji çûna geştyaran di demsala Buharê û cejna newrozê de, dikare wekî alîkarîkirina hikûmeta Malîkî di Îraqê de bihê hesibandin, wate ji aliyekî ve Malikî bi neşandina budceyê zextê bixe ser hikûmeta Herêmê, û ji aliyekî din ve Hikûmeta Tehranê wekî hevalbendê Malikî û yek ji dijberên herêmî ên herêma Kurdistanê ji riya hatina erz û dahata geştiyariyê bo Herêma Kurdistanê bigre.

Li gorî hinek serjimêriyên fermî di çend salên borî de, bi awayê salane zêdetir ji 100 hezar hemwelatiyên Îranî bi armanca serdanê rû kirine Herêma Kurdistanê.

Duyemîn: Rêgirtina ji hatina dahat û erz bo Herêma Kurdistanê ku eşkere ye ew yek wê bandora nigatîv ya zaf li ser rewşa herêmê danê. Wate bertengbûna her çi zêdetir ya çavkaniyên dahatê di herêma Kurdistanê de.

Sêyemîn: Pêkanîna şêweyek ji bê baweriya di navbera xelkê xeyrî Kurd di Îranê, û gelê Kurd bi giştî. Eşkere ye ku rejîma Îranê bi dirêjiya temenê xwe hewil daye ku gelê Kurd wekî neteweyekî şerxwaz û dûr ji şaristaniyetê nîşan bide, ku di destpêka şoreşê de, heya astekê di vî karê xwe de serkevtin bi dest anî. Lê bi xweşî ve di sala borî de ev şêwaza ji bîrkirinê heya asteke berçav xistin nava kirsdanka dîrokê de.

Lê hewlên rejîmê hatin çirkirin bona vê ku ew şêweya bîrkirinê carek din zindî bikin.

Çaremîn: Mifaya şaş wergirtina ji hesta mesebî ya piraniya xelkê kurd, ku peyrewê mesebê Sunî ne, lê piraniya hemwelatiyên xeyrî Kurd di Îranê de Şîe ne.

Rejîma Îranê di 35 salên borî de, beredewam ji riya meseb û herwisa darêtina pîlanan, û şêlûkirina avê masî girtine, û vê carê jî dixwaze weha nîşan bide ku xelkê kurd di warê mesebî de li dijî xelkê Îranê ne, û cardin vê tirsê pêk bîne ku seferkirina bo cihên ku Sunî lê dijîn, bi wateya kirîna mirinê ye.

Cuda ji van polênkirinan, ku armancên qirêj ên rejîma axûndî ji me re eşkere dikin, em dikarin bi pirseke din, nerastbûna îdeyên rejîmê biselimînin.

Hekî biyavê tenahiya Herêma Kurdistanê ne baş e, û metirsî bo hemwelatiyên Îranî heye, bo çi hêzên Siapa Pasdaran têne nava xaka Herêma Kurdistanê, û wekî bixwe dibêjin ew serqalê xizmetgozariyan in? Gelo ew nebûna tenahiyê, canê wan naxe tirsê? Em dikarin ji du biyavan de bersiva van pirsan bidin.
1-Ew banga ku serkonsolgeriya rejîmê û hevalbendên wê dikin, ne rast in û armancên siyasî dipêkin.
2-Hekî netenahî hebe jî, kirêgirtiyên Sipaha Pasdaran bi xwe wê çê dikin, lewra ew jî qet metirsiyê bo xwe çê nakin.

Herçend ku her du xalên îşarepêkirî rast in, û heqîqeta pirsa Herêma Kurdistanê di nav derûna xwe de veşartine.



Ehmed Kirêwe naskirî bi Ehmed Rezgeyî kurê Ebdulla, sala 1348'an (1969), li gundê Rezge ya ser bi Bajarê Serdeştê hatiye dinê.



# Ehmed Rezgeyî: "Piraniya rojên Înê, Dr. Qasimlo seredana nexweşxane û birîndaran dikir".

**H:Rehîm Gergulî**

Ehmed Rezgeyî di temenê 7 saliya xwe de diçe xwendingehê, lê piştî 2 salan, wate di sala duyemîn a xwendina xwe de, babê xwe ji dest dide û bi sedema vê ku kurê mezin yê malbata xwe dibe, destan ji xwendinê dikişîne û bi neçarî rû li karê kolbariya ser sînoran dike.

Ehmed Rezgeyî nasiyariya xwe bi PDKÎ re weha tîne ziman: "Tê bîra min, ez zarok bûm û bab û bapîrên min basa Komara Kurdistanê û Pêşewa Qazî Mihemed û pêşmergan bo me dikirin, wî çaxî min navê PDKÎ bihîst, lê min bi xwe û ji nêzîk ve sala 1982(1361)'an ji rêya du endamên PDKÎ bi navên Kerîm Şelmaşî naskirî bi Kerîm Şehrniya û Mihemed Bêkes ve ku ji dûr ve hindekê jî xizmên me bûn, min PDKÎ nas kir".

Ehmed Rezgeyî tevlîbûna xwe bi PDKÎ re weha tîne ziman: "Sala 1983(1362)'an min bi awayekî fermî peywendiya teşkîlatî bi Kerîm Şelmaşî ve girt, wî çaxî me'mûriyetek dane min û 5 endamên din ên PDKÎ, da ku ji boy partiyê gulleyan bikirin, min gulle kirîn lê di destê min de hatine girtin û ez jî heyama 24 demjimêran hatme desteserkirin, piştre hatim berdan û Kerîm Şelmaşî gote min ku xwe berhev bike û tevlî partiyê bibe.

Eva bû ku di sala 1985(1364)'an ez hatim binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ li Gewredêyê, û piştî 15 rojan min di dewreya 35 a Fêrgeha Siyasî-Nizamî de beşdarî kir û bi fermî bûme pêşmerge".

Ehmed Rezgeyî roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman: "Roja herî xweş a jiyana min ev e ku sala 1991(1370)'an, şerê di navbera Îran û Îraqê de bi dawî hatibû, rewşa PDKÎ pir xirab bû, basa vê yekê dihate kirin ku wê baregehên PDKÎ ber bi Romadiyê ve bibin, ez û 5 pêşmergên din li menteqê bûn û bi tewahî bê hêvî bibûn, lê beravajî di Başûrê Kurdistanê de, xelkê ser hilda, û Kurdistana Başûr rizgar bû, eva roja herî xweş a jiyana min bû".

Di hember de roja herî nexweş a jiyana xwe jî tîne ziman û dibêje: "Roja herî nexweş a jiyana min jî ev e ku sala 1989(1368)'an ez birîndar ketim û li nexweşxaneya PDKÎ li Bolê(Qendîl) bûm, piraniya rojên Înê Dr. Qasimlo seredana nexweşxane û birîndaran dikir, rojekê Dr. Qasimlo hat û got, min seferek bo derveyî welat heye, Dr. Qasimlo çû û piştî çend rojan me li salona nexweşxanê li fîlmeke Vidyoyî dinêrî ku kadrekî dermanî bi navê Mihyedîn hat û got Vidyoyî bitemirînin, ev gotina navbirî ji boy me cihê heyrîmanê bû, em birin ser textan û ragehandin ku gulle berdane ser canê Kak Dr. Qasimlo, û piştî midehek kêm qêrîn û girîn ket nava kadr û pêşmergan de, û rgehandin ku Dr. Qasimlo şehîd ketiye, eva roja herî nexweş a jiyana min e û tu caran li pêş çavên min naçe".

Rezgeyî derheq bi jiyana xwe ya hevpar dibêje: "Sala 1992(1371)'an min keça pêşmergeyekî bi navê Şirîn Mihemed Pena nas kir û me peywendiya ji hevdu hezkirinê damezirand, encama peywendiya me jî bû sebeb ku piştî mideheke kêm û di heman salî de, li Şîwe rezê, em jiyana hevpar ava bikin û berhema jiyana me jî du kur û keçek e".

Ehmed Rezgeyî piştî nêzîk bi 30 salan pêşmergatiyê dibêje: "Hêviya min ev e ku PDKÎ ser bikeve û em ji vê rewşê rizgar bin û herweha daxwazê ji wan kesan dikim ku pişt ji netewa xwe kirine ku vegerin ser rêya rast û destan ji karê xirab bikişînin û pişt û penaya xelkê xwe bin".



Ehmed Rezgeyî rû li xortên Kurdistanê dike û bi vê peyamê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: "Peyama min bo xortên Kurdistanê ev e ku Dr. Qasimlo ji Yekîtiya Lawan ve dest avête karê siyasî û di encam de bûye kesatiyekî navnetewî, lewra ez daxwazê ji we dikim ku asta zaniyariyên xwe bibin ser, û li pey dîroka gelê xwe yê mafxwarî de herin, û nekevin şûna siyasetên dije gelî û dije mirovî ên Komara Îslamî ya Îranê."



# Pêşwaziya ji 8’ê Adarê bi termên keç û jinan ve

**Perî Reşîdiyan**

Termên xwendekarek li Merîvanê, yek li Urmiyê û termên du xwîşkan li Başûr, ew keça ku li bajarê Hewlerê, bi 15 gulleyan bi destên babê xwe hate pirtî-pertî kirin, ew her çar deste xwîşk bi hev re gazî wijdanên me kurdan dikin, û diqîrînin û dibêjin “Êdî bes e! ma heya kengê jinên kurd dê bibin qurbanî”.







Dengê qîrîna wan bi hev re ji wijdana me re dibêjin: “Êdî bes e, heta kengê jina kurd bi sedema namûsê, şeref, urf û edetên parvemayî, hizrên kevneşop, sîstema mêrserdestiyê, kultur, qanûnên ne medenî û ya dawiyê bi destê neyarên kurdan dê bêne kuştin.

Êdî kuştina jinan yê bûye karek rojane. Ne yasayek heye ku li wan xwedî derkeve, û ne wijdanên takekesên civaka me li xewa giran şiyar dibe. Mixabin em xwedî civakek pirr paremayî û paşketî ne. Gellek urf û edet di nav civaka me de hene ku bersiva daxwazên keçên ciwan ên kurd êdî nadin. Keça Kurd êdî dizane ku milkê kesê nîne û kesayetiyeke serbixwe heye.

Ew urf û edet mixabin gellek pirr in, bo nimûne: Kirîn û firotina keçan bi awayên cuda cuda, bedelxwîn dayîn, jin bi jinî, zewaca bi zorê û zewaca di nav eşîrê û ne dilxwaz û ji hemûyan xirabtir, pêşkêşkirin û kambaxtir ji vê jî diyardeya “çendjinî” ye.

Herwiha faktorên din weke ol, bê dewletbûn, qanûna medenî û ... hwd. Kuştin ya xwekuştin nîşana bê yasayî û bêmafiya jinan e. Eger qanûnek hebûya ku xwedî li mafê jinan derketiba, qet rojane keç û jinên kurd nedihatin kuştin.

Ew babê nezan û hov keça xwe di xewê de nedida ber gulleyan. Evqas ku jinên kurd bi neçariyê dest bi xwekuştinê nedibirin, ji ber ku ti deriyek vekirî ji wan re namîne ji aliyê malbat, civak û qanûnê. Xwekujî ne çareserî ye û ne jî rêyek durist. Divê jinên kurd qet li vê rêyê nefikirin û ne hilbijêrin.

Heta kengê emê cil û bergên reş li xwe bikin û bibêjin qeder û çarenûsa wan keç û jinan jî wiha bû. Ma çi gunehê Şeydaya ciwan, kullîka Adarê hebû ku diviyabû bi wê şêweya nemirovane bihata kuştin.

Ew xwîşkên ku termên wan di nava avê de bêcan mabûn, ji xeynî vê yekê ku cinsiyeta wan ne mêr e, çi sûçek dinê hebûn. Hemû civak li hemberî wan tawana suçdar e. Li gorî serhejmariyên ne fermî, nêzîk bi 40 hezar jin û keçên kurd di heyamê wan 22 salên dawî de hatine kuştin.

Gelo kê berpirsyar e?

Heta kengê hindek partiyên siyasî, saziyên sivîl, rewşenbîr, kesên zana û dilsoz, civak, keç û xortên kurd, rêxistênên jinan dê çavên xwe bigrin û bibêjin ku bab, bira, mam, xal û ...hwd li ber namûs û abûra malbata xwe ew kuştin, xwekuştin ji ber ku pirsgirêkeke malbatî ye, ew destêwerdanê tê de nakin.

**Êdî kuştina jinan bûye karek rojane. Ne yasayek heye ku li wan xwedî derkeve, û ne vijdanên takên civaka me li xewa giran şiyar dibin. Mixabin em xwedî civakek pirr paremayî û paşketî ne. Gellek urf û edet di nav civaka me de hene ku bersiva daxwazên keçên ciwan ên kurd êdî nadin.**

Li gorî amarên ku medya û çapemenî bilav dike, li her çar parçên Kurdistanê hejmarek gellek rêxistinên jinan hene. Bi tenê li Başurê Kurdistanê 73 -74 saziyên parêzerê mafên jinan hene.

Lê Mixabin rewşa wan saziyan jî weke partiyên siyasî ye. Mirov gellek kêm dibîse ku çend sazî bi hev re hindek caran karên hevbeş dikin bona çareserkirina pirrsgirêkên micid ên civakê. Ewqas rêxraw nîşana bihêzbûna me nîne, belkî nîşa tevlîhevî û bê bernameyiyê ye.

Bi dîtina min êdî dema wê hindê hatiye ku em jinên kurd bi zanebûn û bîra femînîstî li dora hev kom bibin. Ew hinde xwe li hev dûr negirin û xwe biyanî nehesibînin. Pirsa jina li hemû cîhanê weke hev e. Dema wê hindê hatiye ku her jineke kurd ji mafên xwe yên mirovî xwedî derkeve.

Em dizanin ku maf nayê dan, belkû tê standin. Ji bo mafstandinê divê ku mirov têbikoşe û hewildanan bike. Em jinên Kurd, dibe me bawerî bi hêz û îradeya xwe hebe. Bi yekgirtin, yekdengî û bi hevkariya mêrên xwedî îrade û wekhevxwaz, wijdanên hişar û azadîxwaz, em dikarin civaka xwe li xewa giran şiyar bikin, û li jêr stemê rizgar bikin

# 25 sal bi ser koça dawî ya hunermend Mihemed Şêxo re derbas bû



MIHEMED SALIH ŞÊXMÛS

MIHEMED ŞÊXO (1948-1989)

**Hewlêr (Rûdaw)- Hunermendê mezin ê Kurd Mihemed Şêxo di sala 1947'an de li gundê "Xecûkê" ya Rojavaya Kurdistanê hatiye dinê û cih û bandora wî di huner û muzîka Kurdî de pir diyar e.**

Wî piraniya jiyana xwe bi perîşanî û di koçberiyê de derbas kir, û mixabin sala 1989'an de çû ber dilovaniya xwe.

Birayê Mihemed Şêxo, Beha Şêxo divê derheqê de dibêje: "Hunera ku hunermendî mezin Mihemed Şêxo li pey xwe bi cih hişt, li dilê her mirovekî Kurd xist û di nava her malbatek Kurdperwr de stranên wî tên guhdarkirin. Wî bi stranên xwe kul û derd û zordariya li ser netewa xwe vedigotin."

Ne heps û ne jî sitemkariya welatên dagîrkerên Kurdistanê nikarîbûn dengê wî bibirin. Mihemed Şêxo stranên xwe yên herî xweş û watedar di nava zindanê de gotine û ji ber ku dilsozê huner û doza netewa xwe bû, ew ji hunermendan re bûye mînak û bi dehan hunermendên Kurd heta vê gavê jî stran û awazên wî zindî dihêlin.

Hunermend Şeyda derheq Mihemed Şêxo dibêje: "Bilbila xemgîn Mihemed Şêxo di navbera salên 1969 heya 1972'an dest bi xwendina akadimîk ya mûzîkê kir û bi çend hevalên xwe re Koma Serkeftin ava kir. Kesên akadimîk û şarezayên mûzîkê û herweha kesên ku hunera navbirî şopandine û li stran û awazên wî guhdarî kirine dibêjin, gerek hunera ku Mihemed Şêxo li pey xwe bi cih hiştiye di peymangeh û dibistanên mûzîkê de bê xwendin."

Mamosteyê mûzîkê Mihemed Ezîz Zaza jî dibêje: "Bavê Felekê mîna gellek hunermendên din ên Kurd di hunera xwe de hertim daxwaza mafên gelê Kurd kiriye û berî ku koça dawiyê bike, bi straneke xatira xwe ji vê diniyayê xwast û dilê bi dehan hezar hezkiriyên xwe xemgîn kir, lê ji wan xwest ku di her Adarekê de wî hşiyar bikin da ku dilê wan geş bike."

# Diholjenê navdarê Kurd "Ka Berat" jiyana xwe ji dest da

**Hewlêr (Rûdaw) – Hunermendê navdarê Kurd ê Rojhilatê Kurdistanê "Berat Elî Nûranî" ku bi "Ka Berat" hatibû naskirin, di temenê 81 saliyê de koça dawiyê kir.**

Li gorî medyaya Îranê, roja (09.03.2014)'an hunermend Berat Elî Nûranî li bajarê Sine a Rojhilata Kurdistanê, bi sedema nesaxî û pîriyê jiyana xwe ji dest da. .

Hunermend Ka Berat di warê lêdana Def û Diholê de binav û deng bû û herweha hevalê hunermendê koç kirî Ebdullah Şerîetî bû. Şerîetî jî di warê lêdana Zorneyê de xwediyê nav û dengek bihêz bû.

Ka Berat sala 1932'an li bajarê Sinê ji dayîk dibe û di gellek welatên weke Firansa, Almanya, Yûnan, Rûsiya û Herêma Kurdistanê de beşdarî fistîvalên hunerî bûye.



Ka Berat bi sedema şarezayiya xwe di warê lêdan û jenînê alavên mûzikê, ji aliyê akadimiya netewî a mûzîka Firansayê, bawernameya doktoraya wergirtibû.

# Gotinên Navdaran



A: Firat Ceweri

**Peyayên mezin dîrok,û dîrokê jî kirinên peyayên Mezin xemilandiye.**
***LaBruyêre***

**Biaqil li ser sedeman munaqeşe dikin,kêmaqiljî Biryaran didin.**
***Anarchasis***

**Ger ev netewe nîvî azad, û nîvî jî dîl be,ew najî.**
***Lincoln***

**Yên ku ji bo parastina mafên belengazan nepeyivin, Ew dîl(hêsîr) in.**
***Lowell***

**Zincîra ku hûn dixin stûyê dîlekî,seriyê wê yê din Dikeve stûyê we.**
***Emerson***

**Hêvî gopalê dildaran e.**
***Shakespeare***

**Hêvî tunebûya, jiyan jî çê nedibû.**
***Holderling***

a. Tîpên jêrîn di nava bêjeyekê de bi kar bînin.

| | | |
|---|---|---|
| Ş.................. | Y.................. | Q.................. |
| Û.................. | XW.................. | U.................. |
| X.................. | P.................. | I.................. |
| Ç.................. | R.................. | J.................. |

b. Tîpên jêrîn di nava bêjeyekê de bi kar bînin.

| | | |
|---|---|---|
| C.................. | H.................. | O.................. |
| A.................. | K.................. | M.................. |
| G.................. | N.................. | Ê.................. |
| B.................. | L.................. | Î.................. |

c. Tîpên jêrîn di nava bêjeyekê de bi kar bînin.

| | |
|---|---|
| D.................. | T.................. |
| F.................. | V.................. |
| E.................. | Z.................. |
| S.................. | W.................. |

Navên wêneyên jêrîn bibêjin û binivîsin!







.......................... .......................... .......................... ..........................






.......................... .......................... .......................... ..........................






# Tiştonek



A: Mahir Berwarî

1- Tiştek min heye ser mişar, nîkil mikar.
- Şaşik li ser seraye, bang dide, lê ne melaye.
- Sere mişaru, pê xeparu.

2- Ji vêrê heta Mûsil hemî lawkên çav bi kil.
- Ji vêrê heta Mûsil, hemî xatûnên çav bi kil.
- Wit wit, şûnkê dûl qut.
- Dengbêjekî dengzelal e, ji qewmê xwe re neyar e.
- 10 mêr bi rengekî sitrana dibên bi dengekî.

3- Bager dezî, li palê bezî. (* Ji kewa biçûktire)

4- Li erdê weke gîsk e, li esman weke nîsk e.

5- Tiştek ji gezê biçûktire, ji bihostê mezintire, ji befrê sipîtire û ji qîrî reştire.
- Reş e reş e mîna qîrr, spî ye spî ye mîna şîr, diçe diçe mîna mîr.

6- Tiştekî tiştane, li ser kevra xiştane.

7- Reş e wekî qetranî, sipî ye wekî kitanî, sûr e wekî mercanî, difirit diçite esmanî.

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi rêya E-maila Agiri2003@gmail.com ji me re bişînin.**

# AGIRÎ



Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Tel: (+)9647503640792


## Çend dîmenên taybet bi rêûresma pêşwazî ji sala nû, Koye- Başûra Kurdistanê







